## Nerîna Lîderan



Muhsiniyê Êjêyî:

" Çalakiya di Telegramê de dikare ku wekî tawan bê hesibandin".



Melik Ebdullah:

"Ez şanaziyê dikim bi nerazîbûna ciwanên welatê xwe bi awayekî şaristaniyane".



Demîrtaş:

"Ez pirr xemgîn bûm ku peymana HDP û partiyên Kurdistanî ser negirtt".



Netanyaho:

"Me zanyariyên arşîva etomiya Îranê ya veşartî da Almaniyayê.".

## Zimanê şovînîsteke neteweya desthilardar di devê edîbeke Fars de geriya

**Hizra şovînîstî ya neteweya Fars ev sedan sal e ku li ser neteweyên din de zal e, û wek hertim vê carê ji aliyê wêjevanekî naskirî yê vê bîra hişk ve, êrîş li ser zimanên din yên Îranê hatiye kirin.**

Wêjevan û mamostayê zanîngehên Îranê, "Dr. Şefî`iyê Kedkenî" di nîqaşkirinekê de, bi zimanê sivik êrîş kiriye ser zimanên din yên Îranê, û gotiye ku: "Gelo çi miroveke gêj û nezan tê xwe hînî zimanên herêmî dike, di demekê de ku ev zimanane kesên wêjevan tê de nebûne, da ku digel "William Shakespeare" rikeberiyê bike".
Li hemberî vê nîqşkirina hişk û dugm de, "Dr. Rehber Mehmûdzade" mamostayê zanîngehên Kurdistana Rojhilat û xelkê bajarê Şinoyê bi nivîsîna babeteke têr û tijî bersivek zanistî ji "Şefî`iyê Kedkenî" re daye, û hêza zimanê Kurdî ji bo vî wêjevanê şovînîst yê Fars şirove û zelal kiriye.

Ev êrîşa bizanebûn ku ji aliyê hindek kesên şovînîst yên Fars ve li dijî zimanan û neteweyên din yên bindest yên Îranê tên encamdan, ev yeka vedigere ser vê ku bi sedema hesta demargirjane ve ev qas zehmet nedane xwe da ku li ser zimanên din yên Îranê xwendin hebin, û îman û bawerî bi şiyana van zimanan hebin. Hekî ev edîbê Fars kêmekê jî xwendin li ser zmanê neteweyên din yên Îranê heba wê jê re eşkere bibûya, ku di nava neteweyên Îranê de bitaybet Kurd serbarê evê ku ji aliyê dagîrkerên Kurdistanê ve berdewam hewal heladina ziman û deb û nerîtên wê hatiye dan, lê belê bi sedema bihêzbûna ziman û kultura wê, kesên wekî Baba serheng Dedwanî (hevserdemê Rûdekî) Pîr Şalyarê Hewramî, Ehmedê Xanî, Mela Mistefa Bêseranî, Şêx Riza Talbanî, Qani`i, Hejar, Hêmin,



Şêrku Bêkes û …hwd, tê de hiketine, ku digel Hafiz, Se`idî, Firdosî û … hwd, di warê edebî de dikarin zoranbaziyê bikin.

## Hindek ji nûnerên meclisa rejîma Îranê dosiyeyên gendeliya exlaqî hene

**Hinek Nûnerên meclisê ku dibe nûnerê rasteqîne ên xelkê bin û bergiriyê ji mafê xelkê welat bikin, û bibin tirîbonek bo êş û azarên wan, niha dosiyeyên exlaqî hene**.

Kesê bi navê Selman Xudadadî ku serokê Komîsyona Civakî ya meclisê ye, li ser fesada exlaqî dosiyeya wî çû Dezgeha Dadweriyê de, lê Dezgeha Dadweriyê ew bêguneh da zanîn. Lê hinek ji nûnerên muhafizekar pêdagiriyê dikin li ser dadgehîkirina wî, û wî tawanbar dizanin. Selman Xudadadî berê yek ji fermanderên Spaha Pasdaran bû, ku bi Hac Selman dihate bangkirin. Herwisa navbirî berpirsê giştî ê Îdareya Îtila`ata Erdebîlê bûye.

Mihemed Hesen Cemşîdî nûnerê Bêhşehrê û Hesen Siyêdabadî nûnerê Sebzwarê du nûnerên din ên meclisê bûn, ku bi tohmeta gendeliya exlaqî hatibûn destbiserkirin. Dosiyeyeke Selman Xudadaî himbêz kirina keçekê ye ku derheq kêşeyên pêwendîdar bi nexweşiya bavê xwe serdana ofisa wî kiribû, û dosiyeyke din jî destdirêjiya navbirî li ser munşiyê ofisa xwe bûye.
Lê niha ew serokê komîsyona Civakî ya meclisê ye ku dibe pirojeyasayên derheq jinan, ciwanan, kar û xisarên civakî û mijarên wek wê lêkolîn bike.
Xulamriza Katib nûnerê Germsar jî di hilbijartina meclisa nehem de rikeberê Perwîn Ehmedînijad bû, û li hember de serkevt, lewra wê demî dihate gotin ku bi qestî dosiyeyeke exlaqî jê re hatiye çêkirin. Lê piştra eşkere bû ku navbirî xwastiye destdirêjiyê bike ser du jinan di Fîlîpînê de. Wê demê navbirî ji aliyê polîsan ve rastî lêpirsînê hat, û piştî vê ku 500 Dolar jê wergirtin ew azad kirin. Herwisa xwediyê beşa asansoran di hotêleke Fîlîpînê doz li dijî Katib vekiribû, lê balyozxaneya Îranê ji riya pêwendiyên ku digel berpirsê hotêlê hebûn, ew mesele peçavtin.
Li ser gellek nûnerên din jî gotegotên fesada exlaqî heye, lê dosiyeyên wan kev rek li ser danîne, û nehêlane ku bikeve nav zar û zimanan. Di pêkhateya meclisa rejîma Îranê de, tenê mijarên weke destdirêjî û azara cinsî wekî gendeliya exlaqî tê binavkirin, lê kiryarên din ên wekî pêwendiya digel jinên soba (mucered) li jêr navên wekî sîxekirinê de tê pînekirin, û aliyê tohmetbar wekî tawanbar nahê naskirin.

## Saziya NY du rê li pêş Husiyan danîn

**Şanda NY di Yemenê de, ji Husiyên girêdayî rejîma Îranê daxwaz kir ku yan ji "Al-Hadida" vekişin, yan jî xwe ji bo derbeyeke giran amade bikin.**

"Martin Griffiths" nûnerê NY di Yemenê de, roja Yekşemî 3`ê Hezîrana 2018`an, derheqê dawîhatina bi kirîza Yemenê, ji Husiyên girêdayî rejîma Tehran daxwaz kir da ku bilez ji bajar û bendera "Al-Hadida" de derbikevin.
Navbirî du rê li pêş Husiyan danîne, ku yan bi awayê tewaw bajar û bendera "Al-Hadida" biterikînin, yan jî wê berbirûyê êrîşeke giran ya artêşa Yemen û hêzên Hevlabendiya Erebî bibin.
"Martin Griffiths" ragehand ku, şerê "Al- Hadida" şerekî çarenivîssaz e, û tê texîmkirin ku, di wî şerî de artêşa Yemenê digel hêzên Hevlabendiya Erebî milîşên Husiyan ji nav bibin.Bendera "Al-Hadida" ciheke stratejîk û girîng e, û ji riya vê benderê ve alîkarî û çekûteqemenî ji Husiyan re têne gihandin.Di demên berê de jî serheng "Turki Al-Malki" berdevkê leşkerî yê hêzên Hevalbendiya Erebî derheqê şerê Yemenê de, rejîma Tehranê bi vê yekê tometbar kiribû, ku ev rejîma ji riya bendera "Al -Hadida" ve alîkariyên malî, çek û teqemenî û mûşekan ji Husiyan re dişînin.

# Xamineyî: Armanca Amerîkayê hiloşandina Komara Îslamî ye

**Xamineyî bi tundî siyasetên nû ên Amerîkayê derheq Îranê û derketina ji Bercamê rexne kir, û di heman demê de heft şert û merc ji bo Ewropiyan danîn, ku hekî ew wan mercan bi cih bînin, ewê di rêkkevtinê de bimînin.**

Rêberê rejîma Îranê di merasima fitarê ya berpirsên rejîmê de ragehand, ku ew nikarin aboriya welat ji riya Bercama Ewropayî ve baş bikin.

Wî şeş şert bona domandina Bercamê digel welatên Ewropayî xiste ber basê, û gef xwar ku hekî ew şertên wan cîbicî nebin, ewê çalakiyên berê ên etomî dest pê bikin.

Ew şert bi vî awayî ne:

Derkirina biryarnameyan li dijî Amerîkayê di Konseya Ewlekariyê de, behsnekirina li ser pirograma mûşekî û kiryarên herêmî ên Îranê di gotûbêjan de, garantîkirina ticareta digel Îranê ji aliyê bankên Ewropayî ve, garantîkirina firotina tewaw ya petrola Îranê, Tolvekirina wê bêqewliya berê, û dijayetiya digel tehrîmên Amerîkayê.

Wî derbarê şertê heftem de jî got: Hekî Ewropayî di bersivdana bi daxwazên me de derengiyê bikin, heqê Îranê heye ku çalakiyên nevikî ên xwe dest pê bike.
Xamineyî di axavtina xwe de îşare bi vê kir ku Amerîka dîsan wekî pisîka (pîşka) kartona "Tom" û "Jerry" wê şikestê bixwe.

Wî îdi`a kir ku ji sala 1357 (1979)`an ve Amerîkayê kiryarên curbicur ên siyasî, aborî, leşkerî, û piropagendeyî li dijî Komara Îslamî encam dane, û armanca wê jî rûxandina Komara Îslamî ye.

Herçend ku "John Bolton" şêvirmendê Ewlehiya Neteweyî ya



Amerîkayê di civînekê de ragehandibû ku ewê cejna sala 2019`an di Îranê de bigrin, ku merema wî hiloşandina rejîma Îranê bû, lê roja 23`ê Banemerê ragehand ku carê amanca Trump hiloşandina vê rejîmê nine.

Ew gefên Xamineyî di demekê de ne, ku her li bereberê vekişiyana Amerîkayê ji Bercamê bazara erz tevlîhev bû. Herwisa dewleta Rûhanî jî serbarê bikaranîna hemû hêza xwe ya polîsî û îdareyî, nekarî bazara erz kontrol bike, û nirxa Dolar gihîşte 7 hezar Tûmenî, û nirxa perê welatên cîran jî wekî Lîreyê Tirkiyê û Dêrhemê Îmaratê jî li hemberî diravê Îranê de gellekê bilind bû.

# AKP`ê Îbrahîm Tatlêsis nexiste nav rîzbenda berbijêrên xwe de

**Piştî vê ku Îbrahîm Tatlêsis navê xwe bi awayekî fermî wekî berbijêrê AKP nivîsand, û ew nûçe bû manşeta gellek ragehandinan, lê AKP piştî pêdeçûna bi ser van navan, navê wî ji rîzbendê derxist.**

Çend rojan berî niha serokê AKP yê çiqa Urfayê di kanala TRT a Tirkiyê ragehand ku Îbrahîm Tatlêsis serdana ofîsa AKP li Enqeerê kiriye û navê xwe bo berbijêriya meclisa Tirkiyê nivîsandiye. Berdevkê AKP jî ew nûçe piştrast kiribû.

Lê duh hate ragehandin ku piştî belavbûna rîzbenda fermî ya kandîdan, navê Îbrahîm Tatlêsis tê de nebûye, û Tatlêsis di dema hevpeyvîba bi kanala xeber Turk re gotiye ku, dema min navê xwe nedît, min hest kir ku cardim mêjiyê min dane ber gulleyan.
Ew hunermendê navdar ê Tirkiyê piştî dagîrkirina Efrînê ji aliyê arteşa Tirkiyê ve, digel Erdoxan çû ser sînor û meht û pesna serbazên Tirk kir ku xaka Kurdistanê dagîr kirine.

Belavbûna vê vîdyoya wî pêleke nerazîbûnê di nava Kurdan de li pey xwe anî, û ew wekî kesekî îxantekar bi gel û nîştiman hate binavkirin, û gellek alîgirên wî jî ew wekî keskeî berjewendîxwaz bi nav kirin ku xizmeta dijmin kiriye.

Her di vê derheqê de, li ser torên civakî gellek kesan nivîsandine ku dema Erdoxan û hizba wî karê xwe bi Tatlêsis dane kirin û hem armanca xwe pêkan, û hem jî ew sivik û rezîl kirin, êdî ew berdan û dest jê hilgirtin, ku eva jî encama xizmeta bi dagîrkeran e.

Mixabin mînakên weha di dîroka Kurd de gellek zêde ne, ku yek ji wan Hesen Xeyirî beg nûnerê Dêrsimê bû di perlemantoya Tirkiyê de. Wî di dema şoreşê de ji xelkê Dêrsîmê dixwast ku beşdariyê di şoreşê de nekin, lê serbarê vê hemû xizmetê bi Ataturk di dawiyê de her ji aliyê Ataturk ve biryara bidarvekirina wî hate dan.



# 60 hevwelatiyên Bîcarê sala borî hewla xwekuştinê dan

**Di heyama sala derbazbûyî de, 60 hevwelatiyên Kurd (jin û mêr) yên xelkê bajarê Bîcarê hewla xwekuştinê dane.**

Birêveberê Navenda Tendirustî û Dermanî ya bajarê Bîcarê bas jî vê kiriye ku, di heyama sala derbazbûyî de 60 hevwelatiyên vî bajarî hewla xwe kuştinê dane.

Li gora gotina vî berpirsê "Navenda Tendirustiyê" ya bajarê Bîcarê, ji wan 60 hevwelatiyên Kurd yên ku hewla xwekuştinê dane, 39 ji wan mêr in, û 21 jî jin in.

Birêveberê Navenda Tendirustî û Dermanî ya bajarê Bîcarê bas ji vê jî kiriye ku, di nav vê rêzbendê de, 32 kes ji wan xêzandar in, û 28 kesên din jî soba ne, û herwuha 15 kes ji wan di gundên derdora bajarê Bîcarê de jiyan dikin û 45 kesên din jî di bajêr de jiyan dikin.
Li gora gotina vî berpirsê Hikûmetê, ji koma van 60 kesên ku hewla xwekuştinê dane, çar kes ji van jiyana xwe ji dest dane ku, yek ji wan jin e, û yê din jî mêr in.
Li gora gotina karnas û çalakvanên warê jinan, nebûna yasyeke bihêz û kêmbûna navendên taybet ji bo piştevanîkirin ji jinên xesardîtî bi sedema xwekuştinê di Kurdistana Rojhilat, çend sedemên serekî yên xwekuştin û xweşevitandinê ne di nav jinên Kurd de.

## Rejîma Îranê di xwendingehan de sîstema “Şebab”ê ava dike

**Spaha Pasdaran a rejîma Îslamî a Îranê, ji bo sîxorîkirina li ser dersxwenan de sîstema “Şebab”ê di xwendingehan de ava dike.**

Nûçegihanê malpera “Kurdistanmedia”yê, ragehandiye ku, ev heyamek e ku sîstema bi navê “Şebab” ji aliyê Spaha Pasdaran a rejîmê ve di xwendingehên Îranê de hatiye avakirin.

Ev sîstema bi vî rengî ye, sîstemeke kompiyotêrî ya pêşkevtî ji bo xwendingehan dabîn kirine, û bernama taybet ya bi navê “Şebab” li ser wan kompiyoteran danîne, û kêysên wan kompiyoteran jî polomp kirine, û mafê tu kesî nîne ku dest li van kêysan bide.

Herwiha birêveberên wan jî neçar kirine ku, ji bo encamdana karûbarên întêrnêtî û kompiyotêrî, ji bernameya “Şebab”ê mifahê werbigrin.

Mamostayekî xwendingehê ku nexwastiye navê wî bê eşkerekirin, ji malpera “Kurdistanmedia”yê re ragehandiye ku:“Herçend ku rejîma Îranê di medyayên xwe de ev kiryara ji bo baştir birêveçûna karûbarên dersxwanan, û perwerdekirina di xwendingehan de ragehandiye, lê arm û polompa Spaha Pasdaran a rejîmê, û herwisa ev biryarên Spaha Pasdaran ji bo bikaranîna vê bernameyê, vê yekê nîşan dide ku, ev kiryara tenê ji bo sîxorîkirinê ye, û armanca polompkirina van kêysan, jî ji bo vê ye ku dibe hindek dezgeh di nav van kêysan de danîbin ji bo komkirina zanyariyan, û herwisa rasterast hemû dengên derdorê ji bo navendên Spaha Pasdaran bêne veguhastin, û li wir guhdariya wan bikin”.

Nûçegihanê malpera “Kurdistanmedia”yê, bas ji vê kiriye ku, pêş vê ku ev kompiyoterane ji aliyê rejîmê ve bi wan xwendingehan bên dan, xwendingehan di cihê “internet”ê bi xwe “întiranet” hebûn, cudahiya van wir de ye ku bi întêrnêta rejîmê tenê melperên navxweyî yên Îranê dikarî çav lê bikî, lê di “înternêt” a berê de hemû malper dihatine vekirin.




Niha ku vê sîstema nû ya rejîmê, întêrnêta bihêz jî rakêşaye, û mamosta dikarin mifahê jê werbigrin, egera sîxorî û çavdêriya li ser mamostayan de gellek zêde kiriye.

Vî mamostayî di doma axavtinên xwe de gotiye ku: Hêviyê dikim ku mamosta ji vê pîlana rejîmê haydar bin, bila nekevine nav davka rejîmê, û di dema bikaranîna întêrnêta rejîmê gellek hişyar bin, û bi mobayl û kompiyotêrên şexsî yên xwe întêrnêta rejîmê kar nekin, da ku zanyariyên we ji bo rejîmê nehêne veguhastin.

## Rewşa jin û zarokan di girtîgeha Weramînê de nebaş e

**Rewşa giştî a girtiyên girtîgeha Weramînê nebaş e, û zarokên hepsiyên ku di vê girtîgehê de ne, bi dîtina mêran ditirsin.**

“Zohrê Esedpûr” Çalakvana Mafê Jinan ku di girtîgeha Qerçek a Weramîn ê de hepsî ye, di raporekê de derheqê rewşa dijwar a jiyana jinan di girtîgeha Qerçek a Weramînê de, ku ji bo derveyî girtîgehê hatiye şandin, û di malperên nûçegihanî û torên civakî de jî bi awayekê berfireh belav bûye, gotiye ku: Fêkî û pincar di bernameya rojane ya girtîgehê de nine, û ava vexwarinê jî ber dest nine,û ava şor û tall jî ji bo şuştina kincan baş nine, û ji hevza biçûk ya ava vexwarinê dikarî ji bo şuştina didanan mifahê jê werbigirî, ew jî hekî derfet hebe, û zarokên girtiyan bi vexwarina vê avê, serûdilên wan têk diçin.

Herwisa navbirî di vê raporê de derheqê rewşa nabaş a derûnî ya ku li ser zarokan hakim e, ragehandiye ku ev jî ji ber mana dayîkên xwe di giritîgehê de neçar in di girtîgehê de jiyan bikin, û herwisa eva jî zêde kiriye ku, zarokên wan girtiyan bi dîtina kesên ku weke nûçegihan serdana vî cihî dikin ditirsin.
“Zohrê Esedpûr”, çalakvana mafê Jinan e, û yek ji wan kesan e ku di meha Adara Îsal de, di doma civînên Roja Cîhanî a Jinan de, di pêşberî avahiya Wezareta Kar ya bajarê Tehranê hatibû binçavkirin, û ji wan jinan e ku niha di girtîgeha Qerçek a Weramînê de ye.

Girtîgeha Qerçek a Weramînê taybete bi xwedîkirina girtiyên jin e ku cezayên wan giştî ne, û li rojhilata bajarê Tehranê hilketiye, û zarokên biçûk yên wan girtiyan neçar in heyanî tewawbûna hayama hepsa dayîkên xwe di girtîgehê de bimînin û piraniya wan jî her di wan girtîgehan de û di rewşên nebaş û dijwar de ji dayêk dibin. Girtiyên vê girtîgehê rojane 8 demjmêran ji bo karxaneyên piştevan ku li jêr çavdêriya Dezgeha Dadweriya rejîmê de ne kar dikin, û heqdestê wan jî tenê ji %38-%54 ji heqdestê kedkarên Îranê tê hesabkirin.

## Du milyon û 858 hezar malbat di Îranê li asta hejariyê de ne

**Di Îranê de du milyon û 858 hezar malbatên hejar hene ku berpirsiyarên rejîmê dixwazin bi meaşek kêm vê diyardeyê nehêlin.**

Nûçegihaniyên rejîma Îslamî ya Îranê di demekê de bas ji nehiştina diyardeya hejariyê di Îranê de dikin ku du milyon û 858 hezar malbatên di asta hejariya tund di wî welatî de hene, eve jî di halekê de ye ku dahata mehane ya her malbatekê di Îranê de dibe zêdeyî 3 milyon tûmenî be ku eva jî bi rewşa aboriya niha ya Îranê re neteba ye. Li gor statîstîkên rejîma Îranê, niha du cur hejarî (tund û herî tund) di wî welatî de hene.
Berpirsên rejîmê bas ji wê dikin ku piraniya malbatên Îranê di asta hejariya herî tund de dijîn, eva jî tê wê wateyê ku serperistê malbatê tenê dikare têçûya xwarina endamên malbatê dabîn bike. Hejarî û giranî di Îranê de roj li pey rojê li halê zêdebûnê de ye û berpirsên rejîmê jî tu pêngavekê ji bo çareseriya vê diyarde û pirsgirêka metirsîdar hilnagirin û tenê durşm û sozan bi xelkê didin. Ji aliyê din ve jî jordeçûna nirxa dolar di Îranê de bûye sedem ku nirxa tiût û miştan girantir bibe û evê jî valahiya tex û qatan zêdetir kiriye.

## Rêûresma "Roja Cîhanî a Zarokan" hate lidarxistin




**Rêûresma "Roja Cîhanî a Zarokan" bi amadebûna zarokên kadr, pêşmerge û malbatên PDKÎ, di binkeya serekî a PDKÎ de hate lidarxistin.**

Nûçegihanê malpera "Kurdistanmedia"yê ragehand, roja Pêncşemî 10`ê Cozerdana 1397`an, bi boneya 1`ê Hezîranê "Roja Cîhanî a Zarokan" rêûresmek ji aliyê "Navenda Nêrgiz" a zarokên ser bi Hizba Demokrat ve hate lidarxistin.

Ev rêûresmê bi xwendina sirûda neteweyî a "Ey Reqîb" ji aliyê beşek ji zarokên" Navenda Nêrgiz" û çend ragirtina deqeyekê bêdengî ji bo rêzgirtin ji canê pak yê şehîdên Kurdistanê bi taybet zarokên şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Piştre peyama zarokên "Navenda Nêrgiz"ê bi boneya "Roja Cîhanî a Zarokan" ji aliyê "Rêzan Meqrozî" endama Desteya Birêveberiya "Navenda Nêrgiz" ve hate xwendin.
Piştî pêşkêşkirina peyama "Navenda Nêrgiz"ê, "Mistefa Hicrî" lêpirsyarê giştî yê PDKÎ bi boneya "Roja Cîhanî a Zarokan" bi taybet zarokên Kurd axivî.

Her di doma birêveçûna vê rêûresmê de çend sirûd ji aliyê zarokan ve hatine pêşkêşkirin, û herwiha ji bo rêzgirtin ji wan kesên ku di perwerdekirina zarokên Navenda Nêrgiz de çalak in, "Zemen Beharî" û "Zanyar Beharî" ji aliyê Mistefa Hicrî ve hatin xelatkirin.
Herwisa girûpa sirûdê ya zarokên "Neveda Nêrgizê" jî di vê rêûresmê de hatin xelatkirin.
Hêjayê basê ye ku, ev rêûresma bi nimayişkirina kincên Kurdî û cureyên dawet û dîlanên Kurdî ji aliyê zarokên "Navenda Nêrgiz"ê ve hatibû xemlandin.

Rêûresma 1`ê Hezîranê "Roja Cîhanî a Zarokan" bi nimayişkirina şanoya bi navê "Girane" ji aliyê zarokên "Navenda Nêrgiz"ê ve dawî pê hat.

## Piraniya xwendingehên Îranê kavil in

**Xwendingeh û dersxwanên Kurdistan û Îranê, li jêr deshilata berpirsên rejîma Îranê de ber bi wêraniyê ve diçin.**

Mêhrullah Rexşanî Mêhr serokê rêkxirawa nûjenkirin, vegeşandin û teyarkirina xwendingehên rejîma Îranê di preeskonferanseké de bas ji vê kiriye ku %27 a xwendingehên Îranê di warê avahîsaziyê de wekî kavilbûyî têne hesibandin.
Navbirî gotiye ku %34 a wan, hewcehiya wan bi nûjenkirinê ne, û tenê %39 ji xwendingehan qahîm in.
Wî berpirsê rejîma Îranê di axavtinên xwe de bas ji vê kiriye ku 1 hezar û 700 polên dersgotinê di kanêksekê de bi rê ve diçin, û 987 polên din jî bi heriyê hatine çêkirin.

Navbirî di axavtina xwe îşare bi vê kiriye ku ew xwendingehên ku temenê wan 30 sal dibe, wekî kavil têne hesibandin.

Sala 1393`an berpirsên rejîma Îranê bas ji vê kiribûn ku sala nû ya xwendinê di demekê de dest pê kiriye, ku %50 ya xwendingehên vî welatî ji heriyê hatine çêkirin, û berpirsên rejîmê jî ew xwendingeh şibhandine bi bomba amadekirî bo teqandinê.
Rejîma Îslamî ya Îranê 36 hezra milyard bûdce bo sala 1397`an bo beşa perwerdehiyê daniye ku li çav sala borî, 4 hezra milyard kêmtir e.



Di pirojeyasaya pêşniyarî ya bûdceya sala 1397`an de bo beşa perwerdehiyê, 36 hezar milyard bûdce hatiye diyarîkirin, ku 2 hezar û 831 milyard Tûmen bo beşa birêveberiyê hatiye danîn, ku eva jî li çav sala borî zêdetir ji 42 hezar milyardî kêm kiriye.
Li gora amarên rejîmê %30 a xwendingehên Îranê dibe ku bêne herifandin, û %42 a wan jî sîstema wan a germkirinê tuneye, û di gellek parêzgehên Îranê de jî xwendingeh bi awayê kanêks û xîvetan hatine sazkirin.

Ji aliyek din ve jî Wezareta Perwerdehiyê a rejîma Îranê, şiyana dana mûçeyê mamostayan nine, û 6 hezra milyard Tûmenî deyndarê mamostayan e, û di dema xwe de nikare heqdestê wan bide.

Li gora madeya 30 ya yasay bingehîn a rejîma Îranê xwendin heya asta paşnavendî dibe bi bê beramber be, û bûdceya taybet bo bilindkirina asta perwerdê, tê amadekirin. Lê li hinek xwendingehan de heta 750 hezar Tûmenî pere ji dersxwanan werdigrin.

# Zimanê Kurdî

**Qursên Kurdî, A. Karabax**

Mînak 523/3 : Bi qertafa neyîniyê : Na/ne/ni : Çend bikaranîn :
a. Dibe nabe ez ê bêm salona konferansê.
b. Na, ew nikara beşdarî konferansê bibe.
c. Tu dikarî nikarî, ew kesên biyanî pê dizanin.

Ji helbestan : .../Ne bi gilî me/Ne demdemî me/.../A. Karabax

D) Ji aliyê hevoksaziyê ve hoker :
Ev peyv, di hevokan de ne wek hêmanên bingehîn in lê bo wan alîkar in;
giraniya alîkariyên van, xwe bi bandorî didin ser çalakiyên lêkeran.
Mînak 524 : Di hevokan de hoker : Çend bikaranîn :
1. Di qedînekan de : Piraniya wan bi wateya navdêrîn bikar tên :
a/1. Dotira rojê, li Berîvanê bûye reşbînî. a/2. Li Berîvanê çi bûye reşbînî?
b/1. Duh danê sibehê hîn germ bû. b/2. Duh kengî hîn germ bû?
2. Di avaniya dançêkir de :
a/1. Dar di tebaxê de dan birîn. a/2. Dar di tebaxê de dan birîn?
b/1. Payîzê xaniyek dan avakirin. b/2. Xaniyek payîzê nedan avakirin.
3. Di peyvên çêbiwar de : Wek rengdêr û navdêran bikar tên :
a/1. Saet ji şeşan re çaryek hebû, mirovê zûhatî diçû sûka kevnefiroşan.
a/2. Saet ji şeşan re çaryek hebû, yê zûhatî diçû sûka kevnefiroşan.
b/1. Saet ji nehan re pênc hene, kesên nexwendî li benda kê ne?
b/2. Saet ji nehan re pênc hene, yên nexwendî li benda kê ne?
4. Di erkên kirdeyî de : Piraniya wan bi wateya navdêrîn bikar tên :
a. Şeva dereng diboriya xemgîniyek dida ser dilêşa min.
b/1. Hatin nehatin bi meşan pêk tên. b/2. Hatin nahatin bona çi dibin?

## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

- Beg û megê têkbestî, her yê bi êş û nalîn e
Mîrê qeda lê şkestî, dest û pê lê dibestîne
Jiyê wî digihe sedî, ji serv e û bin ve hestîn e
Şikil kodê leşkirî, xwe li ber ava dixişîne
Wekî mar e bi serî, Yê bê bela û miskîn e

- Xişt û miştê-l hişkan e, dûv dirêjê sîng pan e
Lawu to pê bizane, yê bê soz û jivan e
Hema derket ji konê, xencer jehra li hewa ne
Gih gih korî serê tîj, karê wî pêvedan e

- Bi çîqu çîqal û çeng e, her yê bi şer û ceng e
Dest û pê wek silinga, ne yê zift û çeleng e
Ne yê bi jehr e wek stinga, yê bi heşt piyaw du çeng e

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (327)

## Rêûresma Roja Cîhanî a Zarokan di binkeyeke PDKÎ de


















